

## Komara Îslamî, piştevanê selefiyên cîhadî

»»»» R:3



*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (305) 06-07-2017 Buha (1000) Tûmen*

## Kawe Serkewt

»»»» R:2



## Rojavaya Kurdistanê




»»»» R:5



## Hesen Şerefî:Bi îradeya gel, emê pîlanên dijmin pûç bikin



## Li Parîsê Paka Yilmaz Guney hate vekirin

»»»» R:10



**Roja Duşemiyê 12`ê Pûşperê demjimêr 5 heya 8`ê sibehiyê, binkeyên leşkerî ên rejîma Îranê, navçeyên sînorî ên di navbera Rojhilat û Başûra Kurdistanê li Herêma Kurdistanê topbaran kirin.**

Li gora raporan, rejîmê çend navçeyên berbiniya çiyayê Helgurd li devera Balekatiyê topbaran kirin, û wan topbaranan navçeyên Konerê, Kîfaristan, Qebrokan, Rêzan û Girdugoy bi xwe ve girt. Hevwelatiyên van navçeyan piraniya wan şivan û cotkar û rewend in.

Rejîma Îranê sala borî jî, çendîn carî sînorên Herêma Kurdistanê di navçeyên Berbizîn û seqer û Hacî Omeran, Kunerê, Letîne û dola Alan topbaran kir.

Piştî vê êrîşê, Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi weşandina daxuyaniyekê, bombebarana navçeyên sînorî ên Herêma Kurdistanê ji aliyê rejîma Îranê ve şermezar kir.

Di vê daxuyaniyê de hatibû: “Eva di demekê de ye ku em pabend in bi binemayên cînarekî baş, û destêwerdan nekirina di nava karûbarên yektir de, û em aliyek nînin ji kêşeyên di navbera rejîma Îslamiya Îranê, û girûpên opozisyonê û kêşeyên di navbera wan de”.

Herwisa Hikûmeta Herêma Kurdistanê bas ji vê kir, ku “Em naxwazin di bin vê perdeyê de, rûniştiyên medenî ên Herêma Kurdistanê di navçeyên sînorî, wekî koçer û gundnişîn, bibin qurbaniyê bombebaran û topbaranên rejîma Îranê”. Hikûmeta Herêma Kurdistanê di beşeke din ya daxûyaniya xwe de ragehandibû: “Hikûmeta Herêma Kurdistanê di demekê de ku vê yekê şermezar dike, hevdem daxwaz ji rejîma Îranê jî dike, ku dev ji êrîşkirina li ser xelkê medenî û xaka Herêma Kurdistanê berde”.

»»»» R:5

## Sergotar

### Kawe Serkevt!

**Kerîm Perwîzî**



Di doma destanrêsiya Kosalanê de, dema ku desteyek ji pêşmergeyên can li ser dest ên Kurdistanê, di Kosalana baregeha xweragirî û destanrêsiyê de, li dijî bose û pilanên hêza stemkar a Komara Îslamî rawestiyan, û bi ew qasê cangorîtiyê ve, pozê (difna) spaha hov û wehşî li erdê sûn (malîn), du têkoşerên evîndarê azadî û canfîdayiya riya azadiya Kurdistanê, boseya dijminan têk şikandin, û selimandin ku vîn û îradeya wan gellek bihêztir e ji vê ku dijmin bi xeyala xwe ya xaw, û bi hemû çek û teqemeniyan ve, agir berde çiyayê Kosalan, da ku wan pêşmergeyan bixe qedeman.

Hêzên dijî mirovî yên rejîmê dixwastin ku Kawe bi çok de bînin, lê berevajiyê wê, Kawe Serkevt! di şerê destewyexe ê di navbera tarîtî û ronahiyê de, di pevçûna di navbera hovîtî û camêriyê de, di şerê dijwar ê merdî û nemerdiyê de. Eva bihêzî û baweriya hesinîn ya Kawe û Serkevt bû ku di destanrêsiya Kosalanê û di tirajidiya Boriyerê de, dîrok pencoyî (kedî)kir, û her çawa ku di ketîbeya Tengîwerdê de, bi ser texteberan bûyerên dîrokî hatine hilkolandin, Kawe û Serkevt, bi ked û xuha eniya xwe, û bi xwîna hezkirina ji azadiyê, li ser dilê texteberên Kosalanê, destanrêsiyek hilkolîn.

Komara Îslamî wisa belav dikir, ku hêza pêşmergên PDKÎ bi tenê maye, û xelk amade nine pariyeke nan jî bide wan. Wan wisa xewnên qirêj û gemar didîtînin, ku pêşmerge bê moral e, û baweriya wan nemaye, û wisa hizir dikirin ku bi danîna pilanekê û boseyekê wê hemiyan neçar bi serîtewandin di hemberî tarîtiyê de bikin.

Eva pîlan û şerê wan digel baweriyên bi Kurd û Kurdistanê bû, bona vê ku xwe bi deshilata reha bi ser hizr û mejiyê Kurdistaniyan de nîşan bidin, û hêza pêşmerge jî dorandî û sivik û rezîl bi xelkê bidin nasandin, da ku êdî tu kes hêviyên xwe li ser Demokrat û Pêşmerge û Kawe û Serkevt ava neke.

Di doma pîlanên xwe de, hêzên rejîmê ketin pey şûnpiyê Kawe û Serkevt, û roja 15`ê Pûşperê di meha peymannûkirina xortên Demokrat digel rêberê navdar Dr. Qasimloyê nemir de, xwastin ku bi êrîşa ji nişkêve û çaverênekirî , Kawe û Serkevt wekî du kewên bêdeshilat destbiser bikin, û di nava raya giştî de, wan bêçare û destbiserkirî nîşan bidin, da ku li riha şoreşgeriya neteweyekê bidin, û ne tenê şereke kurt ê taktîkî belkû di şerê berdewam ê dagîrkariyê ya li dijî morala serhildan û xweragiriya Kurdistanê de, peyka serketina mezin lêxin.
Roja 15`ê Pûşperê di şerê destewyexe ê di navbera şoreşgerî û tawanbariyê de, du nûnerên aza û leheng û çav pirr ji birûska kolnedan û serînetewandin û berxwedanê de, dîrok ber bi Kosalan û Boriyerê rakêşan, û cardin dijmin bê hêvî kirin, û di vî şerê bi tewahî neberamber de, du îradeyên bilind û narincokek bi ser sedan pasdarên terorîst û cebilxaneyên tarîperestiyê de serkevtin, da ku cardin biselimînin ku îradeya şoreşgerî û bilind ya mirovî bihêztir e ji çek û teqemeniyên dijminan.

## Semînarek derheq 28.mîn salvegera şehîdên Viyenê li bajarê Silêmaniyê bi rê ve çû



**Semînarek bo yad û bîranîna 28.mîn salvegera şehîdkirina rêberê navdar ê Kurd Dr. Qasimlo û hevalên wê li bajarê Silêmaniyê bi rê ve çû.**

Li gora nûçeya ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, roja Yekşemiyê 11`ê Pûşperê li hola Azadî ya bajarê Silêmaniyê semînarek bo yad û bîranîna 28.mîn salvegera şehîdê navdar ê Kurd Dr. Qasimlo û hevalên wî bi rê ve çû.

Destpêka semînarê bi sirûda Ey Reqîb û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya Dr. Qasimlo û tewahiya şehîdên Kurdistanê bi rê ve çû.

Piştre Tahir Mehmûdî berpirsê ofîsa nûnertiya PDKÎ li Silêmaniyê bixêrhatina mêhvanan kir.

Ew semînar ji du teweran pêk hatibû, ku di destpêkê de, Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ li ser hêz û şiyana Dr. Qasimlo di rêberîkirina hizbê, û herwisa di qada dîplomasiyê de mijareke pirr nawerok pêşkêş kir.

Navbirî di axaftina xwe de ronahî xiste ser helwestên bilind û bi cî ên neteweyî ên Dr. Qasimlo, qonaxên jiyana siyasî ya wî di PDKÎ de, û rola wî hem di PDKÎ û hem di nava tevgera rizgarîxwaziya Kurd de.

Piştre Ebû Tara endamê mekteba siyasî ya Hizba şiyû`î li ser dûrbîniya Dr. Qasimlo û taybetmendiyên şoreşgerane ên navbirî li ser tevgera rizgarîxwaziya Kurd qise kir. Tara di axavtina xwe de, bas ji wan deman kir, ku digel rêberê şehîd Dr. Qasimlo kar kiriye û bas ji kesayetiya bilind ya wî di birêvebirina PDKÎ de kir.

Herwisa di vê semînarê de, hejmareke berçav mamostayên zankoyê, kesayetî û rewşenbîrên Silêmaniyê, û kanalên ragehandinê ên serbixwe û hizbî beşdar bûn.

# Komara Îslamî, piştevanê selefiyên cîhadî



**N: Mistefa Hicrî**

Ebûbekr El-bexdadî bo heyameke zaf, heya dawiya sala 2013`an fermandarê hemû çalakiyên serbazî ên Elqaîdeyê di Îraqê de bû, û di vê heyamê de, gellek kiryarên terorîstî di Îraqê de bi rê ve birin.

Piştî vekişiyana hêzên Amerîkayê ji Îraqê di sala 2011`an de, destê wê zêdetir vekirî ma, bona vegeşandina çalakiyên wê, û di sala 2013an de dest bi ser bajarê Reqayê de girt, û ji wê demê şûnda peyva "Elşam" bi nav "Eldewletul Islamiyet fil Iraq" zêde kir, ku kurtiya wê dibe "DAÎŞ".

Ji wê demê şûnda DAÎŞê di Sûriyê de dest kir bi kar û kiryarên tundûtîj ên zêdetir wekî serbirîna leşkerên Sûrî û bertengkirina deshilatên din ên girûpên tundrev ên terorîstî, û ew şêweya serederiyê bû sedema şer û kuştarê di navbera DAÎŞê û hinek ji taqmên terorîstî ên din bi taybetî taqma "El-nusre". Li gora rapora çavdêrên mafê mirovan di Sûriyê de, di heyama sê mehan de, nêzî 1700 kes di van şeran de hatin kuştin. Di vê heyamê de DAÎŞê ragehand ku rêberên El-nusre îxanetkar in, lewra jî El-nusre li cem Eymen Zewahirî, gilî û gazinde li Ebûbekr El-bexdadî kir. Zewahirî piştî vê gazinde û şikayetê, û bi armanca dawîanîna bi şerê di navbera van du taqman de, daxwaz ji Bexdadî û Cûlanî rêberê El-nusre kir, ku di dadgeheke şer`î de, ku bo vê armancê pêk tîne amade bin, lê Bexdadî di fayleke dengî de, ku ji televîzyona El-cezîrê belav bû, ragehand ku ew bi tenê Bin Ladin wekî rêberê xwe dizane, û amade nine ku peyrewiyê ji fermanên El-zewahirî bike. Piştî vê yekê di destpêka sala 2014`an de, veqetiyana xwe ji Elqaîdê ragehand. Ji wê demê ve, DAÎŞê hevdem digel vegeşîna hêz û deshilata wê, tundûtîjî û kuştareke zaf û wêraniyeke bêqas encam da.

Sedema sereke ya vegeşîna bilez ya DAÎŞê vedigere bo pilaneke serkevtî ya rejîma Komara Îslam bi alîkariya hevpeymanên wê di şerê Sûriyê de (Hizbullaha Lubnanê, rejîma Esed û Nûrî Malikî serokwezîrên wê demê ên Îraqê). Pilan ew bû ku li ser pêşniyara Îranê û bi armanca nifûz û heya qasekî kontrola hêzên terorîstî bi taybetî Elqaîdê, hejmareke berçav ji xelkê şareza û xwedîşiyan, di biyavên cuda cuda de, pêkhatî ji awareyên Efxanî li Îranê, Hizbullah û Erebên Îraqê, û ên Sûrî bo nava hêzên Elqaîdê û bi taybetî DAÎŞ`ê bêne şandin, da ku ew hêzane rû bikin tundûtîjiyê, û kuştar û wêraniyeke zêdetir bafirînin û bona vê ku rûçikeke hovane ji wan nîşanî cîhanê bidin. Ew cîhana ku bawer bû ku Beşar Esed li ser kar vêde bide. Derxistina cergê leşkerekî kuştî ê hêza Beşar Esed ji aliyê yek ji terorîstên Eêqaîdeyê ve, û xwarina wê li hember dûrbîna televîzyonan ku li wir amade bûn, û belavbûna vê nûçeyê li televîzyonan û ragehandinên cîhanê de, hemû aliyek mat û kirr kirin, û bandoreke gellek girîng li ser bîrûraya cîhanê bi taybetî wan welatanm danî, ku biryar dabûn Beşar Esed di deshilatê de nemîne, ku yek ji wan jî Amerîka bû. Wan bîr ji vê kir ku hekî piştî Beşar Esed ew hov û wehşiyane di Sûriyê de deshilatê bi dest ve bigrin. Çi karesatek wê rû bide? Ew yek jî bi cih hatina niyet û armanca Îranê bû, di biyavê xavkirina biryara vêdedana Esed li ser deshilatê.

Her li gora vê pilana Îranê, û bi armanca bihêzkirina DAÎŞ`ê di sala 2013`an de, DAÎŞê biryara êrîşa li ser girtîgehên Îraqê û berdana girtiyên xwe da, û li gora fermaneke veşartî deshilata Bexdayê, tu berbirûbûnek di hemberî van êrîşan de ji xwe nîşan neda, û deriyê hemû wan girtîgehan hatin şikandin, û piraniya şerkeran ku Elqaîde bûn hatin azadkirin. Tenê di girtîgeha navendî ya Bexdayê de, wate li Ebû Xoreybê de, di navbera 500 heya 600 kes ji şerkerên xwedîezmûn û girîng ên Elqaîdê, ji girtîgehê hatin azadkirin, û hemû jî çûne nava rîzên DAÎŞê de. Di nava wan kesan de gellek kesên pispor û şarezayê danîna bombeyan û teqînan û fermandarên şerên çirîkî û…hwd hebûn, ku hemû jî çûne nava DAÎŞ`ê de.

Destbiserdegirtina serbazgeha mezin û naskirî a Mûsilê jî, ji aliyê DAÎŞî ve bi bê tu berbirûbûnekê bi hebûna wan hemû fermandar û serbaz û bi van hemû çek û teqemeniyan ve, her qulpek bû ji qulpên vê zincîra pilanekê, ku DAÎŞ kire ew hêza ku bo heyama çendîn sal e di hemberî hêza yekgirtî ya hevpeymanan de xwe ragirtiye. Ew pîlana rejîma Îranê di warê yarmetîdan û bihêzkirina DAÎŞ`ê deskevteke mezin bo Komara Îslamî desteber kir, ku ew deskevt jî ew bû ku bi navê şer digel DAÎŞ`ê û bergirîkirina ji hikûmeta Îraq û Sûriyê di hemberî DAÎŞê de, ne tenê her hêzeke berçav ya xwe ji Spaha Quds di van du welatan de cihgir kir, belku nifûz û deshilata xwe, di hemû biyavên vê hikûmetê de zêde kir, û bi awayekî ku lawazkirin, û helandina vê dehsilatê, gellek zehmet e û heyameke zaf dikêşe.

Lewra niha rejîma Îranê nîgeranê lawazkirin û jinavbirina DAÎŞê di navçeyê de ye, bi riya êrîşên hevalbendên Amerîkayê. Di hemberî vê alîkarîkirin û bihêzkirina DAÎŞê de, ew jî qedrê vê xizmetpêkirinê dizanin, û di hember de, tu demekê bi awayê bernamedarêtî êrîş nekirine ser Îran û Îraniyan, û herdu aliyan pêwendiyeke germ û gurr û veşartî li ser asta serve parastine, heya vî qasî ku serbarê vê ku di warê îdeolojî de, her yek ji wan ên din bi dijminê xwe dizane, lê rejîma Îranê tu demekê astengî li ser riya teblîxat û piropagendeyên selefiyên cîhadî pêk neaniye, ku di mizgevtên Kurdistanê de, piropagendeyê ji bo bername û bîr û baweriyên xwe dikin, û heta gencên Kurdistanê pal didin (han didin, tûj dikin, nav tê didin) ku herin li Pakistan û Zahidanê di xwendingehên selefiyan de hînî îdeolojî û baweriyên wan bin, yan jî wan bişînin, nava refên DAÎŞ`ê di welatên cîran de, tenê eva nebe ku carna bona ji rê derxistina bîrûraya cîhan û xelkê, êrîş kiribin ser hinek ji kom û komeleyên wan selefiyên li Kurdistana Rojhilat, û çend kesek ji wan bo heyamekê destbiser kiribin, û piştî heyameke kurt azad kirine, ew kesên ku ji vê girûpê hukmê dirêjheyam ji wan re hatiye birîn, û yan çend kesek jî ji wan hatine îdam kirin, ew kes bûn ku bi vê şêweya pêwendiya di navbera DAÎŞ û Îranê nerazî bûn, û her bi vê sedmê ve, li nav rêkxistina DAÎŞê derketin, û niha jî hejmarek ji wan kesan di girtîgehên rejîmê de destbiser û heta hinek ji wan jî hukmê îdamê bo wan hatiye birîn.

Pêwendiya di navbera Komara Îslamî û taqmên selefî ên cîhadî her di destpêka vegeşîna van taqman ve dest pê kir, û rejîma Komara Îslamiya Îranê bi vegeşandina van pêwendiyan karî ji aliyekî ve, pilana destdirêjiyên xwe li navçeyê û duberekî sazkirina di nava her girûpekê de ku bi hewce zanî, bibe pêş, û ji aliyekî din ve, ji vê riyê ve kuntrola van taqman bi dest ve girtiye, û xwe ji zirara êrîşa wan parastiye. Bo nîşandana emegdarmana bi van pêwendiyan her demekê ew taqmane berbirûyê tengaviyan bûn, rejîmê bi hemû awayekî alîkariya wan kiriye, û ew ji mirin û tunebûnê rizgar kirine.



**»»» Doma manşêtê**

Çavdêrên siyasî li ser vê baweriyê ne ku ew hemû tirsa rayedarên rejîma Îranê ji destpêkirina qonaxeke nû ya Rasanê ye.

Her di vê rastayê de, Komara Îslamî nekarî tirsa xwe veşêre û cardin ji riya pasdarê kevneperest ê xwe, Mihemed Pakpûr ve gefa bezandina sînorên Herêma Kurdistanê û lêdana binke û baregehên PDKÎ xwar.

Di vê derheqê de, Hesen şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ di gotûbêjekê de, digel kanala televîzyonî ya Rudawê ragehand, rejîma Îranê, her kiryarekê li dijî me encam bide, wê poşman be.
Şerefî herwisa ragehand ku gellek eşkere ye ku ew poşmaniya rejîma Îranê hem di warê siyasî de dibe, hem jî di warê leşkerî de.

Hesen Şerefî cihgirê sekreterê giştî ê PDKÎ herwisa bas ji vê kir ku PDKÎ xebata nû ya xwe li jêr navê Rasanê de, bi tu awayî bi hêceta berjewendiyên Herêma Kurdistanê yan referandomê ranagire.

Şerefî di gotûbêja digel kanala televîzyonî ya Rudawê de pêdagirî li ser vê kir ku referandom bo hevwelatiyên Başûra Kurdistanê, qonaxeke dîrokî ye.

Şerefî derbarê referandomê de ragehand ku ew yek ji bo hevwelatiyên Herêma Kurdistanê qonaxeke dîrokî ye, lê PDKÎ serbarê vê ku di vê derheqê de li ser qewl û sozên xwe ye, lê heya bo demjimêrekê jî xebata xwe ranagire.

Şerefî ragehand ku PDKÎ derheq helwest û xebata xwe berpirsyar e, û bi tu awayî qiseyekê nake ku di şiyana wê de nebe.

Fermande û berpirsên leşkerî ên rejîma terorîstî ya Tehranê berdewam gefa topbarana binke û baregehên PDKÎ dixwin.

Navbirî ragehand ku heya niha Komara Îslamî çi ji desta hatibe kiriye, û ji niha şûnda jî, çi ji dest wê bihê, wê bike, lê bi xatircemî hekî wekî derbazbûyî pêdagir bin li ser cîbicîkirina pilanên xwe, wê gellek berfirehtir ji caran di navxwe ya Kurdistanê de, ku qada sereke ya xebata me li dijî rejîmê ye, wê pîlanên wan bêne pûç û tunekirin.

Derheq referandoma Herêma Kurdistanê, ji bo serxwebûna Kurdistanê, birêz Hesen Şerefî, tevî îşarekirina bi destêwerdanên rejîma Tehranê di nava karûbarên navxweyî ên Îraqê û handana hikûmeta navendî ya Îraqê li dijî Herêma Kurdistanê, ragehand: Em biryara referandomê wekî derfeteke dîrokî dibînin, lê Komara Îslamî gellek nîgeran e ji vê helwesta ku Herêma Kurdistanê girtiye. Li gora gotina navbirî Komara Îslamî astengiya herî serekî ye li ser riya encamdana referandomê bo serxwebûna Herêma Kurdistanê, û di vê derheqê de xwe ji çi tiştî naparêze.

Ew tirsa Spaha Pasdaran di demekê de ye, ku ji tirsa encamên Rasanê heyameke dûr û dirêj e, ew dezgehên serkutkar di hewla milîtarîzekirina hindî zêdetir ya gund û bajarên Kurdistanê de ne.

Ew hewlên nezok ên rejîma Îranê di demekê de ne, ku xelkê Kurdistana Rojhilat ji derfetan mifahê werdigrin, û bi encamdana çalakiyên cur bi cur piştevaniya xwe ji Rasanê ducarî dikin.



Bo mînak piştî êrîşa buhara sala 2003`an a Zayînî bo ser binke û baregehên Ensar El-Islam ji aliyê Amerîkayê û YNK`ê, ve û rûxana îmareta wan, bi şepirzeyî xwe gehandin Kurdistana Îranê, û ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve hatin vehewandin, û bi piştgiriya Îranê, piştî çend mehan xwe organize kirin.

Pêwendiya Îranê digel Elqaîdê û alîkariyên wê bi vê rêkxirawê di hemû biyavekê de bo hemû aliyekî eşkere ye, Îran stargeheke qahîm û ciyê baweriyê ye bo endamên malbata Bin Ladin û hinek ji nûçeyan bas ji vê dikin, ku Bin Ladin bo xwe jî gellek caran ku êrîşeke bihêz li ser bû, hatiye Îranê, û ji aliyê rejîmê ve, cih û riya mane jê re hatiye dabînkirin.

Lewra hewce ye ku cîhan ji vê rastiyê tê bigihîje, ku hekî rejîma Komara Îslamî bi piropagendekirinê dixwaze wisa nîşan bide, ku ji aliyê DAÎŞê ve, di metirsiyê de ye, û heya carna radigehîne ku kesên ser bi DAÎŞê li ser sînoran destbiser kirine, û piropagendeyê bi van ve dike, ew yek ji şanogeriyekê zêdetir nîne. Heya bûyerên roja 17`ê Cozerdanê di Tehranê de, ku êrîşek li ser meclisa rejîmê û qebrê Xomênî çêbû, bixwe dehan pirsyaran û guman li ser hene. Lê piştî vê pîlanê sedan kes ji Kurdên Îranê ji Tehranê û bajarên din, ên Kurdistanê bi hêceta pêwendiya wan bi êrîşkarên Tehranê hatin girtin.

Niha rejîma Komara Îslamî dixwaze ku çalakiya siyasî û çekdarî ya Kurdan li dijî xwe, girêdayî bi kes û girûpên ser bi DAÎŞê bi cîhanê bide nasandin, û her bi vê navê jî, wan bi giranî cezas bike.

Ew yek hemû nîşana pilaneke nû ya rejîma Komara Îslamî ne, bona serkut û zexta zêdetir bo ser neteweya Kurd û neteweyên din ên bindest, û ji aliyekî din ve wisa nîşan dide, ku jiber ku niha şer bi DAÎŞê re dike, di ber gefa wan taqman de ye, ew yek di demekê de ye, ku bi şahidiya dîroka van çend salan ya şerê DAÎŞê li Sûriyê, û ên ku şahidê qadên şer bûn, rejîma Îranê di vê heyamê de tu şerek di vî welatî de li dijî DAÎŞ`ê nekiriye, û tu kesekî wan jî di şerê DAÎŞê de nehatiye kuştin, belku tewahiya kuştiyan û birîndarên wê ku di Sûriyê de hatin kuştin û birîndarkirin çend

**Pêwendiya di navbera Komara Îslamî û taqmên selefî ên cîhadî de, her ji destpêka vegeşîna van taqman ve dest pê kir**

hezar kesek in, ku ew li şerê li dijî opozisyona Sûriyê hatin kuştin, ku ew şer jî bi xwe di berjewendiya DAÎŞ`ê de ye, jiber ku DAÎŞ jî li dijî opozisyona Sûriyê di şer de ye. Bi watayeke din li Sûriyê Komara Îslamî û DAÎŞ di eniyekê de şer li dijî dijberên Beşar Esed dikin.

## Rojavaya Kurdistanê




**Cemîl Ehmedî**

Piştî parvebûna Kurdistanê di navbera her du împeratoriyên Sefewî û Osmanî de, nêzî sê li ser çar a Kurdistanê kete jêr deshilata Osmaniyan de, lê piştî şerê yekem ê cîhanî û hilweşiyana împeratoriya Osmanî, cardin ew para Kurdistanê ku di bin deshilata Osmaniyan de bû, kirin sê beş, ku beşa herî biçûk ya vê sê parçeyê, Rojavaya Kurdistanê ye. Rojava ne tenê her beşa herî biçûk ya Kurdistanê ye, di warê erdnîgarî û nifûse de, belkû bi xwe jî parve bûye bi ser du beşan de. Lewra kêşeya Rojava a Kurdistanê zêdetir e ji parçeyên din. Lê îro rojê hêviyek di nava Kurdan de çêbûye, ku ew beşa ji Kurdistanê bighîje maf û azadiyên xwe, (wekî Başûra Kurdistanê), û êdî ji aliyê dagîrkeran ve nehê çewsandin, bêguman ew yek jî bi hewl û mandîbûn û yekgirtîbûna Kurdên vê para Kurdistanê, û berçavgirtina riya eqlanî û lojîk bi dest bînin, hekî ne, gellek tiştan renge ji dest bidin, ku derfeta bidestveanîna wan tiştan niha ketiye dest wan de.

**Bêbextî**

Ew bêbextiyên ku di sed salên borî de bi ser xelkê Kurdistanê de hatine, bêguman zêdetir nebe ji beşên din ên Kurdistanê, kêmtir nine, û belgeya herî baş jî, bo selimandina wê, ew e ku heta mafê wergirtina nasname yan belgeya Sûrîbûnê jî tunebûne, û zêdetir wekî aware li wan nihêrî ne, ew jî aware di welatekî faşîst û dijî mirovî wekî Sûriyê de. Çewsandin û haşakirina ji Rojava ji aliyê deshilatên yek li pey yekê ên Sûriyê, gihîştiye astekê ku hinek aliyê Kurd jî haşayê ji hebûna vê para Kurdistanê bikin, û Kurdên Rojava wekî Kurdên aware ên Sûriyê dizanin. Herçend Kurdên Rojava ji sedsala borî ve heya berî raperîna gelên Sûriyê, di sala 2011`an de gellek caran li dijî deshilatên Sûriyê rabibûn, lê bê encam bû. Serhildana vê carê ya Sûriyan li dijî deshilata dijî mirovî ya Beşar Esed û malbata wî, derfeta vê bi rûyê Kurdên Rojava vekiriye, ku hem hebûna xwe biselimînin, û hem jî rizgar bin ji dest çewsandin û haşakirinê, hekî bixwe deriyan bi rûyê xwe de danexin.

**Qonax**

Ji sala 2011`an şûnda Rojavaya Kurdistanê, ji çendîn qonaxan re derbaz bûye, ku em dikarin qonaxan bi vî awayî parve bikin:

1-Destbidestkirina deshilatê di navbera rejîma Be`is ya Sûriyê û PYD de, yan jî valakirina navçeyan ji aliyê rejîmê ve, bo PYD`ê.

2-Êrîşa girûpên cîhadî bo Rojavaya Kurdistanê û bi taybetî êrîşa hovane ya DAÎŞ`ê û bergiriya bê mînak û dîrokî ya kur û keçên Rojava, û şandina hêza piştevaniya ji Başûra Kurdistanê.

3- Bidestxistina piştevaniya navdewletî û hatina hundir ya hêzên Tirkiyê, bo nav xaka Sûriyê.

4-Pêkanîna hêza Sûriyeya Demokrat bi rêbertiya PYD`ê, destpêka rizgarkirina navçeyan, û bi taybetî bajarê Reqa a paytextê xelafeta Îslamî, li Îraq û Şamê. Herçend Rojava jî di van çend salan de, gellek qonaxên dijwar û pirr ji şanazî birîne, lê hêşta jî di nîveka rê de ye, û dibe nîva din jî bi awayekî serkevtiyane bibire, bona vê ku, bigihîje lêva aramî û vegeriyana jiyaneke hêja bo xelkê xêrnedîtî ê xwe.

**Berfirehkirina navçeyên di bin deshilata PYD`ê û zeliqandina wan bi Rojavaya Kurdistanê ve**

Hêzên Rojavaya Kurdistanê (PYD), piştî têkşikandina peleçengên (şevkorên) xelafeta DAÎŞ`ê di Kobanê de, û bi piştevaniya pêşmerge û pêkanîna hêzên Sûriyeya Demokrat û bidestxistina hinek piştvaniya siyasî û leşkerî û…hwd, di asta navdewletî de, niha ji bilî piraniya Rojavaya Kurdistanê navçeyeke berfireh ya Erebê Sunî meseb di destan de ye, û tê pêşbînîkirina ku piştî azadkirina Reqayê, navçeya di bin deshilata hêzên Sûriyeya Demokrat, dirêjî hebin bo başûra Dêrezoerê, heya ku digihîje bajarokê Ebû Kemal, li ser sînorê di navbera Sûriye û Îraqê. Hinek çavkanî û zanyarî jî, bas ji vê dikin, ku hewl û pîlanek heye, ku hêzên Sûriyeya Demokrat bi rêberatiya PYD`ê û bi piştgiriya Amerîkayê, navçeyên jêr deshilata xwe berfireh bikin, li parêzgeha Idlib û Laziqiyê, bona vê ku Rojava girêgirê bidin bi deryaya Medîterane ve. Herçend ku ew yek heya astekê dijwar e, lê di vê alozî û nerohniya pêşerojê a Sûriyê de, renge gellek tiştên cihê heyrîmanê rû bidin.

**Serhildana şer di navbera hêzên rejîmê û PYD`ê de**

Her wekî ku em agehdar in, îro jî beşek ji hêzên delweta Sûriyê di navçeyên Kurdistanî ên Rojavaya Kurdistanê de mane, û beşek ji karûbarê îdarî ê wan navçeyan jî di destên wan de ye, ji bilî vê yekê rejîm di van navçeyan de xwe bi xwedanmal dizane, û PYD û hêzên din jî mêhvan dihesibîne, lê di ratsî de, ne wisa ye û hêzên Beşar Esed dagîrkar in di van navçeyên Kurdistanê de. Serbarê vê lênihêrînên cuda, ku têne xûyakirin, hindî ku tê, zêdetir PYD û rejîma Sûriyê ji hev dûr dikevin, û PYD nêzîî Amerîka û hevalbendan dibe, û Beşar Esed nêzî Rûsiye û Îranê. Lewra dibe di vê navberê de em çavnihêrê şerê yekalîker bin di van navçeyan de ku hêzên rejîma Beşar Esed tê de cihgir in, lê ew şer di demekê de, dest pê dike, ku DAÎŞ nemabe, yan jî lawaz bibe, û heya radeyekê jî balansa hêzê di navbera hêzên Sûriyeya Demokrat û hêzên Beşar Esed de çê bibe, lewra zû yan dereng wê ew şer her rû bide.

**Bertekên di hemberî berfirehbûna deshilata Kurd de**

Renge tişteke xwezayî be, di cîhana siyasetê de, ku bi berfirehbûna deshilata siyasî, leşkerî û erdnîgarî, û ..hwd, hinek di asta navxweyî û cîhanî de pê kêfxweş bin, û hinek jî nîgeran bin, lê kêfxweşî û nîgeranî hemû demekê cuda ne, û bi taybetî derheq berfirehbûna deshilata Kurd de. Di heyama borî de jî, Tirkiyê gellek hewl da, berbest û astengiyan ava bike, di hemberî pêşrewiyên PYD`ê de, lê negihîşte armanca xwe, lê piştî destpêkirina operasiyona Reqayê ku derket dewleta Sûriyê û Rûsiyê jî bi pêşrewiyên HSDê kêfxweş nînin, ku hevpeymaniya navdewletî piştevaniya wan dike, lewra PYD bi vê yekê tawanbar kirin, ku derwazeyek vekirinê bo derketina DAÎŞ`ê ji Reqayê, eva jî bûye sedema bertekên PYD`ê û çend berpirsan bi tundî bersiva rejîma Sûriye û Îranê û Tirkiyê dan. Di hember de pêşrewiyên HSDê cihê kêfxweşiyê ne, bo hevpeymaniya navdewletî û bi taybetî Amerîka û ew deskevtên bi deskevta siyasî û leşker

## Berpirsê ofîsa nûneratiya PDKÎ û Tevgera Rizgariya Demokrat a Kurdistanê digel hev civiyan

**Heyeteke Tevgera Rizgariya Demokrat a Kurdistanê digel berpirsê ofîsa nûneratiya PDKÎ li bajarê Hewlêrê hevdîtin pêk anî.**



Roja Çarşemiyê 7`ê Pûşperê (28.06.2017), heyeteke Tevgera Rizgariya Demokrat a Kurdistanê bi serperestiya kak Ebdullah Nazenînî sekreterê giştî ê Tevgera Rizgariya Demokrat a Kurdistanê serdana deftera nûnertiya PDKÎ li Hewlêrê kir, û ji aliyê heyeteke PDKÎ bi serperestiya Mihemedsalih Qadirî berpirê Pêywendiyên PDKÎ li bajarê Hewlêrê ve pêşwazî ji wan hate kirin.

Di vê hevdîtinê de, Mihemedsalih Qadirî tevî bixêrhatinkirina mêhvanan, bas ji qonaxa nû axebatê di Rojhilata Kurdistanê û çalakiyên PDKÎ di çarçoveya Rasanê de kir û piştevaniya PDKÎ bo birêveçûna pirsa referandomê eşkere kir.

Di vê hevdîtinê de, heyeta mêhvan spasiya pêşwaziya PDKÎ kir. Piştre Ebdullah Nazenînî sekreterê giştî ê Tevgera Rizgariya Demokrat a Kurdistanê basek li ser birêveçûna referandomê li Herêma Kurdistanê bo serxwebûnê û derfet û astengiyên pêşiya vê derfetê bo heyeta PDKÎ kir.

Piştre heyetên her du aliyan, basek li ser guherînkariyên herêmê û derfetên pêşiya Kurdan, bo pirsa neteweyî kirin, û di vê derheqê de, bas ji rola nerênî ya Îranê derheq gihîştina Kurdan bi armancên xwe û destêwerdana di nava karûbarên navçeyê de kirin.

---

a xwe dizanin, ji aliyekî din ve renge welatên Erebî jî, bi rêbertiya Erebistanê bi pêşrewiyên HSD kêfxweş in, ku hem DAÎŞ ber bi jinavçûnê diçe, û hem jî nakokiya di navbera HSD û rejîma Sûriyê berfireh dibe.

**Parvebûna Sûriyê bi bê xwesta zilhêzan û welatên navçeyê**

Di destpêka meşên Sûriyê de, û heya sala 2014`an hêviyek hebû ku rejîma Beşar Esed hiloşe, û dewleteke nû li Sûriyê bê ser kar, û aramî û xweşborandin û avedanî vegere Sûriyeya yekgirtî, lê piştî avabûna bi dehan girûpên terorîstî, û dagîrkirina yek li ser sê, a xaka Sûriyê û Îraqê ji aliyê DAÎŞ`ê ve û hatina hundir ya welatên navçê û zilhêzan bo nava xaka Sûriyê, êdî kes baweriya bi vê nemaye, ku Sûriye yekgirtî bimîne, û di rastiyê de dabeş bûye. Di sê salên borî de, hemû hêzên navdewletî û navxweyî di Sûriyê de, bi rejîmê ve jî, vê rastiyê dizanin ku Sûriye yekparçe namîne, û hêz ketin rikeberiya hevdu, bona vê ku zortirîn xakê bi dest bînin, û wekî rastiya heyî bibin fermanrewayê vê navçeyê, îca kontroldikin û destbiserdegirtina vê navçeyê, rasterast be, yan ji aliyê hêzeke hevpeymanan ve be.

Ew hêzên êrîşker ên di Sûriyê de, di hewla kontrolkirina navçeyan de ne, bi hêzên rejîmê ve jî, her yek ji wna ji aliyê zilhêzeke navdewletî yan navçeyî ve, piştevanî ji wan tê kirin, û heta bas ji piştevaniya ji girûpên terorîtsî dikin, eva jî bûye sedema bê baweriya bi yektir, û kûrbûna nakokiyan di navbera welatên din de, û bi taybetî Amerîka û Rûsiyê. Hekî caran Amerîka û Rûsiye tenê di rikeberiya yektir de bûn, bona kontrolkirina xak û esmanê Sûriyê, û ew welat parve nekiribûn, lê îro dibînin ku ne tenê her hewlên xwe çirr kirine,bo girtina zortirîn xakê, belkû esmana Sûriyê jî parve kirine û firokeyên wan ên şerker nikarin sînorê esmanî yê din bibezînin. Di çend rojên derbazbûyî de, me dît ku ew lihevkirina di navbera Rûsiyê û Amerîkayê de hebû, bi sedema xistina xwarê ya balafireke rejîma Sûriyê ji aliyê Amerîkayê ve, Rûsiyê lihevkirina xwe digel Amerîkayê hiloşand, û hişdariyeke tund da hêza esmaniya Amerîkayê, ku sînorê hêzên wan nebezînin. Di hember de Amerîkayê jî hişdarî da balafirên rejîma Rûsiyê, ku nêzî esmanê hêzên HSD`ê nebin, hekî ne, ewê balafirên wan bixin xwar.

**Avabûna dewletekê li Rojava û beşeke Sûriyê**

Herwekî ku pêştir me bas kir, dabeşbûna Sûriyê tişteke çavnihêrnekirî ye, û bawer nakim ku tu kes û aliyek bikare rêgir be, ji perçe perçebûna vî welatî, ew yek jî renge xewna mêjîn ya beşek ji Kurd bi cî bîne. Pêngavên nû ên PYD û avakirina HSD û bidestxistina piştevaniya Amerîka û beşeke zaf ji welatên bibandor ên navçe û cîhanê, ji bo rizgarkirina xaka jêr destê DAÎŞ`ê, egera vê yekê bihêz dikin, ku di pêşerojê de dewletek di van navçeyan de ji dayîk bibe, û bibe rastiya heyî, û bêguman ew dewlet bi rêbertiya Kurd (PYD) û beşdariya beşek ji Erebên Sunî be, lê di vir de çend pirsên girîng çê dibin:

**Di dema niha de ez bawer im, bo heyameke domdirêj jî, Kurd û Amerîkayê berjewendiyên wan bi hev re hene, û di pêxema van berjewendiyan de, her du alî, neçar in ku dostê hev bin**

Yek: Gelo ew dewleta ku bi hevbeşiya Kurd û Erebê Sunî ava dibe, dikare bê alî be, di rikeberiyên navçeyê de?

Duyem: çi garentiyek heye ku şerê Kurd û Ereb li ser çawaniya îdarekirina dewletekê çê nabe?

Sêyem: Çi xatircemiyek heye ku guherîna demografiyê di berjewendiya Ereban de rû nede? Çi garantiyek heye, ku Erebên Sunî dest bi ser dewletekê de negre ji riya hilbijartinê ve? Dibe ew yek li be rçavê me be, ku di van navçeyan de rêjeya dengê Kurd û Ereb gellek li hev nêzîk e, û piraniya aliyên Kurdistanî ên din hatin dûrxistin ji siyasetê ji aliyê PYD`ê ve.

**Pêwendiya di navbera Kurd û Amerîkayê de**

Gellek caran bas ji dostatiya di navbera Kurd û Amerîkayê tê kirin, û pirania çavdêrên siyasî û aliyên siyasî li ser vê yekê hevdeng in, ku pêwendiya baş di navbera Kurd û Amerîkayê, di berjewendiya herdu aliyan de ye, lê hinek bi guman ve dinihêrin pêwendiyan, û li ser vê baweriyê ne, nabe ku baweriyê bi Amerîkayê bikin, û wan heya ku pêwîstî bi Kurd hebin, dostatiya wan dikin. Kurd dibe vê yekê bizanin ku di cîhana siyasetê de, (ne dijminatî bo heta heta ye, ne jî dostatî). Wate ya ku du aliytan dike dost û dijminê hevdu, berjewendiya hevbeş û dij bi yek e, her demekê ku du aliyan berjewendiya hevbeş hebûn, dibin dost, û berevajiyê vê yekê jî, dibin dijminê hevdu, yan bi hev re dikevin nava rikeberiyan de. Di dema niha de ez bawer im, bo heyameke domdirêj jî, Kurd û Amerîkayê berjewendiyên wan bi hev re hene, û di pêxema van berjewendiyan de, her du alî, neçar in ku dostê hev bin, guman jî di vê de me tunebe, ku her ew berjewendiya hevbeş e, ku Kurd di her du beşên Kurdistanê de pêwendiyeke baş digel Amerîkayê heye, û palpiştê hevdu ne, çiqas Amerîka berjewendiya wê di pêwendiya bi Kurdan re hebe, bêguman ew qas jî berjewendiya wan pêwendiyan bo Kurdan e jî, lewra nabe ku Kurd çaverê be, ku tenê ew ji vê dostatiyê qazanc bike, yan xwe wekî qurbanî bibîne.

# Nerîna Lîderan



Hesen Şerefî: “Rejîma Îranê li dijî me her pêngavekê hilgire, wê poşman be”.




Nîkî Hîlî: “Rejîma Îranê wê bibe xwediyê çeka etomî”.



Emar Hekîm: “Îsraîl piştgirî dide giştpirsiya



Sedir: “Daxwaz ji birayê xwe Barzanî dikim referandomê paşve bixe”.

## KMMK-G derheq zêdebûna destbiserkirinên xweser nîgeraniya xwe eşkere kir




**Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv daxwaz ji hikûmeta Îranê dike ku rêz ji konvansiyona Jinêvê û peymannameyên navneteweyî ên mirovdostane bigre.**

Li ser bingeha nûçeya gihîştî bi Kurdpayê, Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv daxuyaniyek derbarê destbiserkirina endamên malbata Husên penahî ji aliyê hêzên ewlekariyê ve belav kir.

Di vê daxuyaniyê de, Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv îşarê bi zexta li ser malbata Husên Penahî dike, û vê yekê wekî serkuta neyasayî dihesibîne.

Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistana Îranê-Jinêv daxwaz ji Asime Cehangîr dike ku dewleta Rûhanî neçar bike bi qebûkirina dermankirina Ramîn Husên Penahî li derveyî girtîgehê.

Ramîn Husên Penahî roja Înê 2`ê Pûşperê di dema şer û pevçûna digel hêzên Spaha Pasdaran di Sineyê de birîndar bû, û li jêr îşkence û lêpirsîna tund de, ji hişê xwe çûye, û niha di nexweşxaneyekê de li derveyî parêzgeha Kurdistanê tê ragirtin.

Piştî vê pevçûnê, hêzên ewlehiyê rijiyana mala malbata Husên Penahî û çend kes ji endamên vê malbatê digel xwe birin, û di dema birina wan de li wan xistine.

## Hikûmeta Herêma Kurdistanê topbaranên rejîma Îranê mehkûm dike



**Hikûmeta Herêma Kurdistanê tevî vê ku topbaranên navçeyên sînorî ji aliyê rejîma Îranê ve mehkûm dike, û konsolê giştî ê rejîma Îranê jî vedixwîne.**

Nûçegihaniyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê di raporekê de belav kirin, ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê bombebaranên van dawiyane ên navçeyên sînorî ên Herêma Kurdistanê ji aliyê rejîma Îranê ve şermezar dike.

Di vê daxuyaniyê de hatiye: “Eva di demekê de ye ku em pabend in bi binemayên cînarekî baş, û destêwerdan nekirina di nava karûbarên yektir de, û em aliyek nînin ji kêşeyên di navbera rejîma Îslamiya Îranê, û girûpên opozisyonê û kêşeyên di navbera wan de”.

Herwisa Hikûmeta Herêma Kurdistanê bas ji vê kiriye, ku “Em naxwazin di bin vê perdeyê de, rûniştiyên medenî ên Herêma Kurdistanê di navçeyên sînorî, wekî koçer û gundnişîn, bibin qurbaniyê bombebaranê û topbaranên rejîma Îranê”.

Herwisa Hikûmeta Herêma Kurdistanê ragehandiye: “Hikûmeta Herêma Kurdistanê di demekê de ku vê yekê şermezar dike, hevdem daxwaz ji rejîma Îranê jî dike, ku dev ji êrîşkirina li ser xelkê medenî û xaka Herêma Kurdistanê berde”. Herwisa Hikûmeta Herêma Kurdistanê gazî konsolê giştî ê rejîma Îslamiya Îranê dike û ragehandiye ku armanc ji vê vexwandinê bo gehandina peyam û helwesta nerazîbûnê ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye, da ku vê peyamê bigehînin paytexta xwe”. Roja Duşemiyê topxaneyên rejîma Îranê navçeyên sînorî ên Başûra kurdistanê bi dirêjahiya 15 km topbaran kirin.

# Semînarek derheq 28.mîn salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî bi rê ve çû



**Bi beşdariya sekreterê giştî ê PDKÎ û endamên rêberî û kadr û pêşmerge û malbatên PDKÎ û herwisa hejmarek mêhvanan ji bajarên Herêma Kurdistanê, semînarek bi boneya 28.mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî, di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de bi rê ve çû.**

Roja Sêşemiyê, 13`ê Pûşperê, Komîsyona Perwerdê ya PDKÎ semînarek bo birêzan Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî û Dr. Hûşmend Elî mamostayê zankoyê bi rê ve bir.
Ew semînar bi sirûda neteweyî ya “Ey Reqîb” û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan dest pê kir.
Destpêkê Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ bas ji kesayetiya Dr. Qasimlo û rola wî rêberê leheng kir, li ser tevgera rizgarîxwaziya Kurd li Kurdistana Îranê, û parçeyên din ên Kurdistanê.
Navbirî di beşeke axavtinên xwe de îşare bi bandora Dr. Qasimlo di yekxistina hêza gel û birêkxistinîkirina vê hêzê bo xebata li dijî dijminên Kurdistanê kir, û got: “Ew bandorane heya niha jî, ku 28 sal bi ser terorkirina wî re derbaz dibin, her diyar û berçav in”.
Piştre Dr. Hûşmend Elî mamostayê zankoyê di biyavê dîroka hevçerx û nû de, baseke têrûtejî li ser dîplomasiya Dr. Qasimlo pêşkêşî beşdaran kir, û şehîd Qasimlo wekî balyozek bo hemû gelê Kurd hate pênasekirin, ku hewl dida kêşeya Kurd bicîhanî bike.
Navbirî got: “Dr. Qasimlo bi sedema pêgihîştin û têgihîştin û zimanzaniya xwe karîbû cihê xwe li cem siyasetvan û rojnamevanan û rêkxirawên Ewropî veke, û ji vê pêgehê ve bandorê danê ser bûyerên pêwendîdar bi Kurd ve”.
Ew semînar paş demjimêr û nîvekê bi pirsyar û bersivên beşdaran dawî pê hat.

## Kurdistan ber bi pêşwaziya ji 22`ê Pûşperê ve çû



**Endam û alîgirên PDKÎ bi boneya 22`ê Pûşperê 28.emîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo, di Kurdistana Rojhilat de, tirakt û wêneyên şehîd Dr. Qasimlo belav kirin.**

Li gora rapora ku gihaye malpera Kurdistanmedia, endam û alîgirên PDKÎ li parêzgeha Kirmaşanê yad û bîra Dr. Qasimlo bilind nirxandin.

Li parêzgeha Kirmaşanê endamên emegdar û dilsoj ên riya şehîdan, tirakt û posterên taybet bi 22`ê Pûşperê belav kirin.Têkoşerên Demokrat li bajarê Serpêla zehaw li taxa şahid a pênc û şeş, û herwisa li bajarokê Sedra bi nivîsîna diruşmên taybet bi vê rojê, terorîzma rejîma Îranê mehkûm kirin û wefadariya xwe bi rêbaza Dr. Qasimlo nû kirin.

## “Dadgeha Inqilab” a Urmiyê, hukmê hepsa di “teb`îd”ê de, bo hevwelatiyekî Kurd birî



**Hevwelatiyekî Kurd di Urmiyê de, ji aliyê Dezgeha Qezayî ya Hikûmeta Îslamiya Îranê ve, hukmê pênc sal hepsa “Te`izîrî”, û 20 sal hepsa “tei`lîqî” û dûrxistina bo yek ji girtîgehên parêzgeha Xurasana Rezewî, jê re hate birîn.**

Li ser bingeha rapora ku gihaye Ajansa Kurdpayê, liqa 1 ya dadgeha Inqilab a Urmiyê bi derkirina hukmekê, hevwelatiyekî Kurd bi navê Bêhzad Mehmûdnijad kurê Osman bi pênc salan hepsa te`izîrî û 20 salan hepsa te`ilîqî û dûrxistina bo yek ji girtîgehên parêzgeha Xurasana Rezewî mehkûm kir.

Çiqa 1 ya dadgeha Inqilab a Urmiyê, bi tohmeta endametî û alîkariya digel yek ji hizbên Kurd ên opozisyona Hikûmeta Îslamiya Îranê, hukmeke bi vî rengî, bo wî hevwelatiyê Kurd derkiriye.

27`ê Xermanana sala 1395`an, hêzên cihgir di binkeya Heştiyan a ser bi navçeya Somayê trombêla hevwelatiyekî Kurd bi navê Erkan Se`îdî kurê Şoqî dane ber gulleyan, û navbirî di encama vê êrîşê de jiyana xwe ji dest da. Di vê bûyerê de Bêhzad Mehmûdnijad xelkê Gêçê bi giranî birîndar bû, û ji aliyê hêzên hikûmetî ve hate destbiserkirin. Roja Pêncşemiyê 8`ê Pûşperê jî, hukmê 11 salan hepsê bo Nasir Şaboyî Dûdkanî, xelkê Şinoyê ji aliyê çiqa 13 ya dadgeha pêdeçûnê ya parêzgeha Azerbayacana Rojava ve hate birîn.

Ew hevwelatiyê Kurd di çiqa 101 ya dageha cezadanê ya 2 ya Şinoyê ve bi tohmeta endametiya di hizbeke Kurdî a opozisyona hikûmeta Îranê û hewldana bo tevlîhevkirina ewlehiya navxweyî bi du caran “pênc sal hepsê” û bi tohmeta çalakiya piropagendeyî di berjewendiya hizbên Kurdî ên opozisyona hikûmeta Îranê, bi yek sal hepsa te`izîrî hate mehkûmkirin.

# 120 hezra zarokên Belûç ji mafê xwendinê hatine bêparkirin

**Serokê Civata Nûnerên Sîstanê di meclisa rejîmê de ragehand: Berevajiyê amarên dewletê rêjeya rasteqîne ya zarokên bêpar ji xwendinê di vê parêzgehê de 120 hezar kes e.**



Roja Yekşemiyê 11`ê Pûşperê di gotûbêjekê de digel malpera "Xanêyê Milet" Mihemed Ne`îm Emînîferd ragehand: Aliyê kêm 120 hezar zarokên Belûç ji mafê xwendinê, bêpar in, ku sedemên sereke ên wê pêk tên ji: Nebûna nasname, destpêrenegihîştina bi navendên xwendinê, nebûna dadperweriya fêrkarî û lawaziya biyavê kulturî.

Li gor gotina navbirî, %70 a wan zarokan ku li bajarên Îranşar,Çabehar, Kenarek, Nîkşehr û Serawanê dijîn, xwedînasname nînin, û pêştir jî di sala 1390`î de, navenda lêkolîna meclisê ragehandibû ku li gora serjimêriyên sala 1385`an zêdetir ji 3 milyon zarok di Îranê de, ji mafê xwendinê hatine bêparkirin, ku sedema sereke ya wê pêk tê ji: Hejarî û destengiya malî, nebûna fezayê taybet bo xwendinê, dûriya xwendingehan, û duzimanîbûna xwendinê.

Di meha Rezber a sala borî de jî, nûçegihaniya Tesnîm di raporeke wêneyî de, avirek dabû rewşa şepirze ya xwendinê li parêzgeha Sîstanê de, û tê de hişdarî dabû derheq egera devberdana zêdetir ya zarokan ji xwendinê, ew jî bi sedema nebûna kelûpel û hewcehiyên xwendinê, bo mînak nebûna ava vexwarinê, û nebûna cantayên xwendingehê, û nebûna pênûs û pertûk û …hwd.

Li gora hinek amarên fermî tenê li parêzgeha Sîstanê pêwîstî bi aliyê kêm 8 hezar mamosta û 800 hezar metrî rewşa hêjayî fêrkariyê heye, pirsek ku çendîn sal e, çalakên vê herêmê bas jê dikin, lê tu demekê ji aliyê rejîma Îranê ve bersiva wan nehatiye dan, û hatine piştguhxistin.

Heyamekê berî niha rojnameya Şerq, di lêkolîneke meydanî de, eşkere kiribû, ku dersxwanek hekî bixwaze bi awayekî gellek asayî, di xwendingeheke hikûmetî û bi dûr ji têçû û xercên zêde, (wate tenê bi cîbicîkirina pertûk û tênûs û pênûs û canta û …hwd) here xwendingehê, dibe 700 hezar Tûmenî pere xerc bike, helbet ev xerc, cuda ye ji wê perê ku di bin navê alîkarîgehandina bi Felestîn û zarokên Sûriyê, û dabînkirina sotemeniyê û kirîna kaxezên Îmtihanê û …hwd, ji zarokan tê wergirtin, eva jî di demekê de ye, ku li gora esla 30 ya yasya bingehîn a Komara Îslamî erk û wezîfeya ser milê dewletê ye, ku hewcehiyên xwendinê bo hemû rûniştiyên Îranê heya dawiya qonaxa navendî dabîn bike.

# Amerîka: Îranê tu hewlek nedaye, bo nehêştina kêşeya qaçaxa mirovan

**Wezareta Karê Derve a Amerîkayê roja Sêşemiyê 6`ê Pûşperê rapora xwe ya salane derbarê qaçaxa mirovan di cîhanê de belav kir. Ew rapor nîşan dide ku Îran di rîzbenda sêyem ya qaçaxa mirovan de ye.**




Tîlirson Wezîrê Karê Derve ê Amerîkayê di dema xwendina vê raporê de, ku bi amadebûna Trump serkomarê Amerîkayê û keça wî Îvanko, di Wezareta Karê Derve ê Amerîkayê de bi rê ve çû, got: Bi Hezaran jin û zarok di raserî cîhanê de, têne qaçaxkirin, û ew yek şêweyek koletiya modern e.

Li gora nûçegihaniya Fransayê rapora salane ya Amerîkayê bas ji çend şêweyên qaçaxa mirovan kiriye. Şêweya yekem ew welat in, ku hebûna kêşeya qaçaxa mirovan qebûl kirine, û bo nehêştina vê kêşeyê hewl didin. Şêweya duyem û sêyem pêwendî bi wan welatan ve heye, ku ew kêşeya bi fermî nas kirine, û tu hewlek bo nehêlana wê nedane, yan wê bi fermî nas nakin, ku Îran di vê astê de ye.

Li ser bingeha wan raporên ku heta ji aliyê nûçegihaniyên fermî ên Îranê ve jî hatine belavkirin, Komara Îslamiya Îranê hinek ji hevwelatiyên Efxanistan û Pakistanê li jêr navê parêzerên "Herem"an dişîne şerê Sûriye û Îraqê.

Di beşeke din ya vê raporê de ji Îranê daxwaz hatiye kirin ku rêz ji yasayên navneteweyî bigre, û hewlên zêdetir bide bona vedîtina torên qaçaxa mirovan û tora qaçaxa cinsî. Li gora gotina Tîlirson Wezîrê Karê Derve yê Amerîkayê, li sertaserî cîhanê de, nêzî 20 milyon kesî qurbaniyê qaçaxa mirovan in. Wî ragehandiye ku Kureya Bakur ku yek ji mînakên herî xirap ên qaçaxa mirovan heye, di navbera 50 heya 80 hezar mirovî neçar bi karkirina li derveyî welat kiriye, ku piraniya wan di Çîn yan Rûsiyê de ne, û hiqûqê wan rasterast digihîje Kureya Bakur.

# Li Parîsê Paka Yilmaz Guney hate vekirin

**Li Herêma 10 a Parîsa paytexta Fransayê, bi navê derhêner û sînemakarê navdar ê kurd Yilmaz Guney, parkek hate vekirin.**

Li semta Strasbourg Saint-Denis a Herêma 10 a Parîsê, Parka Yilmaz Guney bi fermî hate vekirin.

Di 27ê Adara 2017ê de, Şaredariya Parîsê biryar dabû, ku navê Yilmaz Guney li parkekî bê danîn.

Di dema vekirina parkê de Serokê Şaredariya Herêma 10 a Parîsê Remi Ferraut, ji malbata Mitterandê Gilles Mitterand, hevjîna Yilmaz Guney, Fatoş Guney, derhênerê ku li Festîvala Fîlmên Cannesê de li gel Guney xelat wergirtibû, Costa Gavras û herwiha nûnerên sazî û rêxistinên kurd li Parîsê jî amade bûn.

Semta Strasbourg Saint-Denis a Herêma 10 a Parîsê, yek ji wan herêmane ku herî zêde kurd lê dijîn. Herwiha derhênerê navdar ê kurd Yilmaz Guney jî demekê li vir jiyaye.

**Yilmaz Guney kî ye?**

Derhêner û sînemakarê navdar ê kurd Yilmaz Guney, bi navê rast Yilmaz Putun, di 1ê Nîsana sala 1937ê li gundê Yenîce ya bajarê Edene ya Tirkiyê ji dayik bû. Bi eslê xwe ji malbateke kurd ê Siwerega Rihayê ye.

Yilmaz Guney dibistana seretayî û ya navîn li Edeneyê xwend. Ji ber ji malbateke karker bû, di 9 saliya xwe de dest bi kar kir. Di dema xwendina amadehiyê de dest bi nivîsandina çîrokan kir.

Guney xwendina xwe ya bilind li beşa hiqûyê ya Zanîngeha Enqerê, beşa aborî ya Zanîngeha Stembolê kir. Di dema dibistanê de, di sala 1957ê de dadgeh derbarê wî de 7 sal û nîv cezayê zîndanê û 2 sal û nîv jî cezayê sirgûnê dide. Lewma xwendina xilas nake. Lê ew tenê salekê di zîndanê de dimîne.

Guney, di sala 1972an de bi sedema ku tevlî bûyerên sîyasî bûye tê girtin û 2 sal li girtîgehê dimîne û paşê serbest tê berdan.

Yilmaz Guney ji ber kuştina dozgerê Yumurtalikê 18 sal bi cezayê zîndanê hate mehkum kirin lê ew di sala 1981ê de ji girtîgeha Spartayê reviya û bi awayekî veşartî derkete derveyî welêt.

Guney di sala 1982ê de, di Festîvala Fîlmên Cannesê ya Parîsê, bi fîlma xwe ya bi navê Yol anku Rê, xelata Palmiyeya Zêrîn girt.

Derhênerê kurd Yilmaz Guney, di 9 îlona 1984ê de, hê di 47 saliya xwe de li Fransayê koça dawî kir.






# Ji bo wêjeya kurdî giringiya wergerê

Werger û wergerandin beşên herî sereke yên çand û wêjeya her miletekî ne. Wergerandin ne tenê guhestina tekstekê ji zimanekî bo zimanekî dine, lê werger pireke şaristanî û zanistî jî bi xwe re ava dike, bi taybetî ji bo gelê Kurd, wergerandin yek ji erkên herî pêwist û girînge, ku bibe sedemek ji bo dewlemendbûna ziman û wêjeya kurdî bi giştî.

Wergerandin şahî û daweta ziman e û zengînî û dewlemendiyeke mezin dide her zimanekî. Bi riya wergerandinê, xwîneke germ û nû di laşê zimên de digere û ziman nûjen dibe û şaristanî, çand û kultûrên dinyayê bêtir nêzîkî hev dibin û di nav hev de dihelin û dîmeneke gerdûnî ya mirovatiyê pêk tînin.

Tê gotin ku hin desthilatdarên Rojhilat di demên kevn de, pirtûkên wergerandî dipîvan û li gor giraniya wan zêr didan wergêran.

Wergerandin li ber guhastinê tenê naskine, lê berhemê ji nû ve diafirîne. Nivîskarê portugalî yê bi navûdeng Jose Saramgo rol û girîngiya wergerandin û wergêran ji ya nivîskaran bi xwe jî bilindtir dibîne û wiha dibêje: “Nivîskar edebiyateke neteweyî dirust dikin, lê belê wergêr edebiyata gerdûnî yan cîhanî dirust dikin.”

Ji bo gelê Kurd û wêje û edebiyata kurdî, girîngiya wergerê hîn bêtir e. Werger di qada edebî de, li şoreşeke zimanî û hizrî diçe, çimkî wergerandin dikare asoyên nû û deriyên girtî li pêşiya ruhê kurdî yê asêmayî û dorpêçkirî veke.

Mixabin ku wergera ji zimanê kurdî bo zimanên din yan ji zimanên din ji bo zimanê kurdî pir kêm e û ne wek ku tê xwestin e.

Werger wergerandina fikr, raman û hizran e, lewma divê kesê wergerê bike yan bi zimanê kurdî binivîse, bi kurdî bifikire. Çimkî li gor gelek pispor û zimanzanan wergerandin yek ji diyardeyên ziman bi xwe ye.




Bêguman wergerandin wek proseyeke berdewam û têkildarî jiyan û edebiyata temamiya miletan, herweha wek huner û pîşesaziyeke profesyonel ku pîvan, prensîb û bingehên xwe yên taybet hene, hewcedarî alîkarî, piştevanî û amadekirina atmosfêran e da ku wergêrekî Kurd bihêle wek mînak Kafka, Kundera û Şoloxov şikestin, hêvî, daxwaz û xewnên xwe bi kurdî bînin zimên.

Werger dikare bibe faktorek ku mirov û xwînerê Kurd bi çavekî kurdî li dinyayê binere û bûyer û pêşketinên cîhanê bi hişekî kurdî biparzinîne.

Ingilîz dibêjin wergêr xayîn in, lê belê dibe ku baştirîn xayînên ser rûyê dinyayê wergêr bin. Çimkî wergerandin pireke û divê ew pir zû di navbera edebiyata kurdî û ya cîhanê de bê sazkirin.

## Zimanê Kurdî

# Li ser şîvê

**Sarê û Silo îroj mazûvan in, êvarî mêvanên wan tên. Mazûvaniyê ji malbata Xecê û Dewran û ji ya Kewê û Mistoyî re dikin. Mêvan hatine û niha wê li ser sifreya xwarinê rûnên.**

Sarê: Ji kerema xwe re derbasî ser sifreyê bibin. Fermo xwişka Xecê tu li vir rûnê, kekê Dewran tu jî derbasî kêleka wê bibe. Hûn jî kekê Misto û xwişka Kewê derbasî vî aliyî bibin, ji kerema xwe re. Cih fireh e, têra me tevan he ye.

Sarê û keça wê ya mezin Siltan xwarinê tînin ser sifreyê: Girara bi rûnê malê, tirşika bi goşt, cacix, zelete û nanê tenûrê li ser sifreyê datînin.

Sarê: Destê te sax be xwişka Sarê, me ji bêhna wê têr xwar.

Kewê: Xwarinên xwişka Sarê bi navûdeng in. Ez nizanim çi dixe hundirê wê ku wilo bêhnxweş û bi tahm dikelîne.

Sarê: Xwarinên we jî ne kêmî yên min in. De kerem kin em dest pê bikin.

Silo: Destê Mistoyî nagihêje nên, ka keça min selikeke din nan bîne ber xalê xwe Mistoyî.

Misto: Na, na, ne hewce ye; ji xwe ez vê pêlê nên zêde naxwim. Dîsa min zik berdaye.

Silo: Bi xwarinên Sarê zik li te mezin nabe. De kerem ke.

Kewê: Keça min tu dikarî ji kerema xwe re hinek xwê jî bînî? Vê pêlê ez çi dixwim bi min bê xwê tê.

Sarê: Min bi zanebûn tirşik kêmxwê çêkir ku her yek li gorî xwe xwê biavêjeyê.

Kewê: Lê xuya girarê temam e. Bi rastî di ser girara te re girar tine ye.

Misto: Bêhna wê pir xweş difûre, li ber zikê xwe nanêrim, ezê jî bixwim.

Sarê: Ka keça min ji xalê xwe re hinek girara din dagire.

Silo: Zeleteyê jî bikişîne bi ber xwe ve. Zeleteya Sarê jî bi tahm e.

Dewran: Destê we sax be, bi rastî tev jî xweş çêbûne. Mirov jê têr nabe. Lê gotineke bav û kalan he ye, dibêje; „Ma ka ne ya te ye, qey kadîn jî ne ya te ye?“ Divê em îşev bi xwe karibin.

Sarê: Ger hûn bi ya min dikin, li ber zikê xwe nekevin, têr bixwin. Îroj he ye, sibe tine ye.Dewran û yên din dikenin û xwarinê didomînin.

Silo: Birayê Misto j i te re hinek girar û tirşika din bixim sêniyê?

Misto: Na, bi serê te. Ez teqiyam. Min bes e. Xwişka Sarê destê te sax be.

## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

**Ev beş e ne metelok in lê min bi pêtvî zanî li vir çapbikim, ev reng e bîrkariye pêtvîne bo pêzanîn û bîrtîjkirna zaroka.**

**- 9 tenûrên neh nan, her nanekê 9 kutilk li ser, her kutilkekê 9 pişîk li ser, her pişîkekê 9 têjik li ber. têjka çendin? (* 9 tenûr, 81 nan, 729 kutilk, 6561 pişîk, 59049 têjik)**

**- Refeka çûçka di firin. Çûçkeka dî li ser darê gutê: Hûn çend çûçk in? Êkê bersiva wê da û gutê: Em û hindî me, nîveka me û çarêka me ligel te dê bîne sed. Erê hemî çend çûçkin? Hawkêşa cebriye: Me girtî jimara refa çûçka (S) e. Loma: S+S+0.5S+0.25S+1=100, 2.75S+1=100, 2.75S=100-1=99 S=99/2.75= 36 (* Jimara wan teva (36) çûçikin.)**

**- Refeka teyra gute refeka teyrên dî: Heke êk ji we bête nav me, em dê sê car hindî we lêhêyin. Refa dî gutê: Na! Heke êk ji we bête nav me em dê hindî êk lêhêyin. Erê jimara her refekê çend bûn? Bersiv: (* 3, 5)**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

